Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 47
15'ê September
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Sala Nû Ya Xwendinê Pîroz Be

Di rojên beriya me de sala nû ya xwendinê dê dest pê bike. Bêguman pêşeroja civaka Kurdistanê hewcehî bi zanebûn û perwerdebûna gişt keç û kurên me di navendên xwendin û zanistî de heye. Em vê boneya pîroz ji tev aliyekê pîroz dikin û ji xwendekar û mamostayên re hêviya serkevtinê dikin.

**Malbata Weşana Agirî**

Kofî Enan got:

# "Îran Amade Ye Rewşa Herî Xirab Qebûl Bike"

***Kofî Enan, Sekreterê Giştî yê Neteweyên Yekbûyî piştî gera xwe ya 2 hefteyî ji bo Rojhilata Navîn, di hevpeyvînekê de bi rojnameya "Finenational Times"ê re, ji dewletên Îranê û Sûriyê xwest ku ji bo cihgirkirina aramî û tenahiyê di Rojhilata Navîn de bi civaka navneteweyî re alîkariyê bikin.***





Derheq pirsa Etomî ya Îranê, Kofî Enan diyar kir ku dewleta Îranê di pêvajoya dosya Etomî ya xwe de tu nermiyekê ji xwe nîşan nade û li ser helwestên xwe yên her car bi îsrar e. Enan got: "Îran amade ye rewşa herî nebaş qebûl bike, di rasî û şaşiya biryara xwe de, gelek bawerî bi xwe heye."

Kofî Enan anî ziman ku rayedarên Îranê nigeranê vê çendê ne ku renge êrîşa leşkerî bi wan bihê kirin û eva di halekê de ye ku aboriya Îranê ne ewqas xurt û bihêz e û ew hevgav tevî welatên din yên herêmê tevnagerin.

Sekreterê Giştî yê Neteweyên Yekbûyî gotiye ku Îran niha rastî hinek dorpêçkirinan hatiye, di asta navneteweyî de bi pirsgirêkên mezin re berbirû hatiye kirin, balafirên Îranê berdewam dikevin xwarê û dewleta Îranê nikare alavên hewce yên balafiran ji derve bikre.

Amerîka:

## "Konseya Ewlekar Ya NY Aqibet Dê Îranê Rastî Hisarên Aborî Bike"

Berdevkê Wezareta Derwe ya Amerîkayê roja pêncşamî, 14.09.2006'an diyar kir ku Konseya Ewlekarî ya Rêxistina NY aqibet dê Îranê rastî dorpêçkirinên aborî bike. Çunkî Îranê dema diyarîkirî (31'ê Auguste) a Konseya Ewlekariyê ji bo rawestandina mehandina Uraniyûmê berçav




negirtiye û divêt bihê cezadan. Her di vê derheqê de endamên Konseya han li ser cezadana Îranê ne yekgirtî ne.

Rûsiya û Çîn bi nisbet baykotên li ser Îranê nerazî ne.

Amerîka û gelek ji hevalbendên wê li ser vê baweriyê ne ku Îran bi dizî ve li cehda bidestxistina çeka Etomî ye, lê Îran vê yekê ret dike.

Neviyê Dr. Qasimloyê Nemir Zewicî

## Dawetek Bi Çek Û Cilên Pîroz Yên Pêşmergatiyê Li Bajarê Pragê



Rûpela 9

## Konferansa Navneteweyî Ya Lêkolînên Kurdî




Rûpela 5-6

# Daxuyaniya Deftera Siyasî Ya PDK Îranê, Bi Hinceta Pêkhatina Heştemîn Civîna Komîteya Navnedî

**Hevwelatiyên hêja!**
**Xelkê azadîxwaz yê Kurdistanê!**
**Alîgir, endam, Kadro û Pêşmergeyên PDK Îranê!**

Komîteya Navendî ya PDK Îranê, hilbijartiya Kongreya sêzdehem ya partiyê, seet 16:00'ê paşnîvroya roja duşem, 20'ê Xermanana 1385'ê Rojî, hevberî 11.09.2006'an, heştemîn civîna xwe lidar xist û piştî 3 rojan xebatên berdewam, demjimêr 20'ê êvariya roja çarşem, 13.09.2006'an dawî bi karên xwe anî.

Heştemîn civîna Komîteya Navendî di destpêkê de bi îlankirina deqîqeyekê bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdan dest pê kir. Piştre bername û destûra karê civînê kete ber raya beşdaran û li pey pejirandina bername û destûra karê civînê, hevalê hêja û xebatkar, Kekê Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê bas û şîroveyeke siyasî derheq guhertinên nava du civînên partiyê di asta deverê, Îranê û Kurdistanê de pêşkêşî civîna Komîteya Navendî kir.

Şîroveya siyasî ya Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, di çend basên civînê de kete ber bas û piştî vê çendê ku beşdarên civînê dîtin û nêrînên xwe der barê her yek ji wan bas û mijaran xuya kirin, hate pesendkirin.

Di vê şîroveyê de bi hûrî û berfirehî îşare bi şerê navbera Hizbelaha Lubnanê û Îsraîlê hatibû kirin. Di vê derheqê de civîna Komîteya Navendî ya PDK Îranê Komara Îslamî ya Îranê wekî hayder, pêkîner û sebebkarê wî şerî da zanîn ku bo careke din piştgiriya vê rejîmê ji destek û girûpên

**Civîna Komîteya Navendî ya PDK Îranê Komara Îslamî ya Îranê wekî hayder, pêkîner û sebebkarê şerê navbera Hizbelaha Lubnanê û Îsraîlê da zanîn ku bo careke din piştgiriya vê rejîmê ji destek, girûpên tundrew yên terorîstî ji raya giştî re da kifşê û eşkeretir û zelaltir ji berê fitneçîtî, maytêkirin û destêwerdana Komara Îslamî di kar û barên hundir yên welatan bi armanca alozî û tevlihevkirina tenahî û rewşa herêma Rojhilata Navîn derxist holê**




tundrew yên terorîstî ji raya giştî re da kifşê û eşkeretir û zelaltir ji berê fitneçîtî, maytêkirin û destêwerdana Komara Îslamî di kar û barên hundir yên welatan bi armanca alozî û tevlihevkirina tenahî û rewşa herêma Rojhilata Navîn derxist holê û careke din ev rastiye da xuyakirin ku heke Komara Îslamî ya Îranê bi van siyaset û kiryarane çekên Etomî bidest bixe, dikare tirs û gefeke mezin bo ser tenahî û aramiya herêmê be.

Di şîroveya siyasî ya Sekreterê Giştî de qala rewşa Îraqê bi giştî û Kurdistana Îraqê bi taybetî hatibû kirin. Di vê derbarê de civînê tevî îşare bi aloziyên herêmên Navend û Başûra Îraqê, keyfxweşbûna xwe ji pêkhatina hikûmeta hevgirtî ya Kurd û yekgirtina her du îdareyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê nîşan da û helwesta Serokatiya Herêma Kurdistanê derheq ne hildana ala Îraqê ya serdemê Beesê li Kurdistanê bi gaveke neteweyî hesiband û piştgirî dayê.

Derheq Îranê, heştemîn civîna Komîteya Navendî ya PDK Îranê, îşare bi kirîza Etomî ya Komara Îslamî tevî civaka cîhanî kiriye û encama her dij kiryareke Konseya Ewlekariyê û civaka cîhanî li hember serhişkiyên Komara Îsalmî xiste stûyê vê rejîmê.

Civîna Komîteya Navendî rêz ji tevger û serhildana nerazîbûnê ya neteweya Azerî girt ku di meha Banemera îsal de hate lidarxistin û ew tevgere bi bizaveke neteweyî hesiband ku di halê xurtbûnê de ye.

Civîna Komîteya Navendî ya PDK Îranê liv û tevgera nerazîbûnê a neteweya Kurd li Kurdistana Îranê şeba bersivdana gel bona vexwendina PDK Îranê bi hinceta 22'ê Pûşperê, hevdehemîn salvegera terorkirina Dr. Qasimloyê nemir û liv û tevgerên din di seranserî Kurdistanê de bi rûmet hesiband û rêz û hurmet jê girt.

Civîna Komîteya Navendî ya PDK Îranê li ser girîngiya xurtkirina Kongreya Neteweyên Îrana Federal tekez kir û pêşdebirin û pêşveçûna pêvajoya xebatên vê kongreyê wek sebebeke jêhatî ji bo berbipêşdebirina çareserkirina pirsgirêka neteweyên Îranê di Îranê de zanî.

Pilînomê piştî lênihêrîneke li ser kar û barên rêxistinî li derveyî welat, pêşniyar kir ku girîngî û baleke bêtir bi karê rêxistinî li Ustiralya û Amerîkayê bihê dayîn.

Ji ber zêdebûna dezgehên ragihandin û çapemeniyê yên partiyê û ji bo pêkanîna hevahengiyê di belavkirina nûçeyan de, civîna Komîteya Navendî rasipartin da Deftera Siyasî hetanî ji bo pêkanîna navendeke nûçeyan hewl û bizavê bide.

Civîna Komîteya Navendî derheq kirîz û pirsgirêkên hundirîn yên partiyê de, rasipartin da Deftera Siyasî ku careke din cehd û hewlên xwe di çarçoveya azîn, usûl û pirensîpên partiyê û pêrewa hundirîn de bi armanca çareserkirina van pirsgirêkane bidomîne û rapora kar û xebata xwe di vê derbarê de bide civîna Komîteya Navendî ya tê.

Civîna Komîteya Navendî piştî 3 rojan karê berdewam, her wekî îşare pê hat kirin, seet 20'ê êvariya roja çarşem, 13.09.2006'an dawî bi karên xwe anî.

**Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**23.06.1385'ê Rojî**
**14.09.2006'ê Zayînî**

**Civîna Komîteya Navendî ya PDK Îranê, keyfxweşbûna xwe ji pêkhatina hikûmeta hevgirtî ya Kurd û yekgirtina her du îdareyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê nîşan da û helwesta Serokatiya Herêma Kurdistanê derheq ne bikaranîna ala Îraqê ya serdemê Beesê li Kurdistanê bi gaveke neteweyî hesiband û piştgirî dayê**

# Peyama Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Ji Bo Konferansa Salane Ya YCDK Îranê Li Swêdê

**Beşdarên hêja yên Konferansa salane ya YCDK Îranê li Swêdê tevî silavên germ!**

Em lidarxistina konferansa we ya salane pîroz dikin û hêvî dikin ku we konferanseke dewlemend û pir berhem hebe û biryarên wisan jê bikeve ku ji bo domandina çalakî û xebatên YCDK Îranê li Swêdê bi sûd û bibandor be.

**Xûşk û birayên rêzadar!**

Girîngîdan bi ciwanan wekî xwediyên pêşeroja civaka me, herdem ji bo PDK Îranê esleke girîng û berçav bûye û rola ciwanan di pêvajoya tevgera Kurd de bilind û bibandor hesibandiye û hêvîdar e di pêşerojê de jî bi lîstina rola xwe di tev warekê de serkevtîtir bibin.

Eva jî eşkere ye ku PDK Îranê çi di şiyan û îmkanê hebûye ji bo piştgirî û piştevanî ji Yekîtiya Ciwanên Demokrat ya Kurdistana Îranê tu dirêxî û kêmxemiyek nekiriye û di vê derfetê de jî piştevaniya xwe dubare dike û li ser de tekezê dike.

Me çavnihêriya vê çendê heye ku hûn ciwanên Kurdistana Îranê li her cihekê û welatekê dijîn, nûner û sembola taybetmendiyên bilind yên neteweya me bibin û di heman demê de ji bo xwe elimandin û pêgehandinê û bibandorbûn di pêvajoya tevgera me de bixebitin û ji wan derfet û delîveyên ku li derveyî welat ji bo bêtir perwerdebûnê hene, mifaheke baş werbigirin.

Dubare em rêz û silavan ji bo we hemûyan re dişînin û ji rêya we jî ji bo gişt endam û alîgirên we.

Serkevtin ji bo Konferansa we.



**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**08.06.1385'ê Rojî**
**30.08.2006'ê Zayînî**

# Peyama Desteya Nûnerayetiya Giştî Ya YCDK Îranê Li Derveyî Welat, Ji Bo 7'emîn Konferansa Giştî Ya YCDK Îranê Li Swêdê

**Hevrêyên hêja!**
**Keç û kurên welatparêz!**
**Beşdarên dilovan ên konferansê!**

Berî her tiştî bi hinceta pêkanîna 7'emîn konferansa giştî ya salane a YCDK Îranê li welatê Swêdê, konferansa **"25'ê Gelawêj"**ê em pîrozbahiyên xwe ên germ pêşkêşî we dikin û bi dil û can ji we re hêviya birêveçûna konferanseke pir naverok, dewlemend û pir destkevt dixwazin. Derheq hilbijartina vî navê pir naverok, em destxweşiyê dibêjin konferansa we û her bijîn.

Konferansa teşkîlatî ya "25'ê Gelawêj"ê di demekê de ji aliyê we xweşteviyên biemeg ve birêve diçe ku di çend hefteyan berî niha de ciwanên mafxwaz ên Kurd li Rojhilatê Kurdistanê di bin çavdêrî, zext û zora rejîma Komara Îslamî ya Îranê de weke herdem bi mêranî û mêrxasî tevî geş kirina agir li ser çiyayên bilind ên Kurdistanê dest avêtin belavkirina nivîs û dirûşmên cur bi cur yên neteweyî û bi vî awayî hevalbendiya xwe tevî tevgera neteweyî – demokratîk a Kurdistanê nû kirin û rêz ji 25'ê Gelawêjê girtin.

Bê guman hilbijartina navê "25'ê Gelawêj"ê ji konferansa giştî ya salane ya we re li welatê Swêdê, berî her tiştekê nîşaneya hevxebatiya kûr û qahîm a we tevî xebata demokratîk û mafxwazane ya ciwanên şoreşger yên Kurdistanê ye û bilind nirxandin û buha pêdayîna tekoşîna biwêrane ya wan e.

**Ezîzno!**

Eşkere ye ku konferansa seranserî ya salane ji aliyê Komîteya YCDK Îranê li Swêdê, ji aliyekê berçavgirtina yek ji bingehên sereke yên demokrasî û karê bi kom e ku li girîngtirîn pênaseyên YCDK Îranê ye. Ji aliyeke din ve pêdeçûn û lihevdana xebat û tekoşîna di navbera du konferansan e û hevdem diyarîkirina xwegerkirine nû û îroyî ye ji bo pêşdebirina hê baştir û zêdetir ya rêxistina me û lihevanîn tevî guhertinan û bidestxistina derfeteke baştir e ji qazanc û berjewendiyên armancên giştî yên YCDK Îranê re.

**Rêzdarên beşdar yên konferansa "25'ê Gelawêj"ê!**

Desteya Nûnerayetiya Giştî ya YCDK Îranê li derveyî welat, xebat û tekoşîna berçav ya di navbera du konferansên YCDK Îranê li Swêdê de giranbuha û bilind dinirxîne û tevî gotina destxweşî û herbijîn bi hemû çalakiyên dilsojane yên tev ciwanên demokrat li Swêdê, spasên xwe pêşkêşî Komîteya Birêveberiya YCDK Îranê li Swêdê dike ku li midehê yek sala borî de bi bernamerêjiyeke hêja û îroyîn tevî bidestveanîna çendîn destkevtan ji rêxisitna me re li Swêdê, li pêşdebirin û pêşkevtina rêxistina han de ku bi hezaran ciwanên welatparêz ên Kurd di




nava refên xwe de kom kirine, roleke baş û cihê pesenê hebûye.

Careke din em pîrozbahiya xwe bi hinceta pêkanîna konferansê pêşkêşî we dikin û piştevaniya Desteya Nûnerayetiya Gıştî ji we xweşteviyan re nû dikin.

Hêviya me xweşiya we ye.

**Desteya Nûnerayetiya Giştî ya YCDK Îranê li derveyî welat**
**Berpirsê Ewropayê**
**Rehîm Reşdî**
**02.09.2006**

# Xelkê Kurdistanê Li Ehmedînejad Pêşwazî Nekirin



Mehmûd Ehmedînejad, roja pêncşem, 09.06.1385(31.08.2006)'an, gera seredana xwe bo bajarên parêzgeha Azerbaycana Rojava(Urmiyê) dest pê kir.

**Mehabad:** Ehmedînejad, demjimêr 12:00'ê nîvroya roja pêncşem, li demekê de çû bajarê Mehabadê ku di roja sêşemiyê de hemû cihên bajar ketibûne bin çadvêriya berfireh a hêzên rejîmê de. Serbarê vê çendê ku rejîmê hewleke zaf ji bo pêkanîna pêşwaziyeke nimayişî ya germ û gur li navhatî re dabû, lê nifûseke kêm ku ew jî piranî li karmend, mamostayên dînî û xwendigehan û kesên ku li binyatên weke "Mustezefan" û Komîteya "Îmdad" û "Bêhzîstî" yên miaş werdigirin, besîcî, rêdînsipî, serok eşîret û caşên herêmê pêkhatibûn, çûne pêşwaziya Serok Komar, ku hejmara wan nedigihîşte 2500 kesan. Her wiha xelkê bajar ji bo derbirîna nerazîbûna xwe seba seredana han, dikanên xwe girênedan û heta hatin û çûn li ser şeqamên bajar li rojên pêştir zêdetir (qerebalixtir) bû.

Her weke ku dihate mêzekirin, Ehmedînejad, di dema axavtinên xwe de soz û qewlên dûr û dirêj yên weke terxankirina 72 milyar tûmenan ji bo bajarê Mehabadê, avakirina yarîgeha werzişî û holên werzişî, yên cuda ji kur û keçan re û... dane xelkê.

Hêjayî gotinê ye ku li dema axavtina Serok Komar de piraniya kesên ku çûbûn pêşwaziyê, poşman bûn û vegeriyane malên xwe.

Her wiha endam û alîgirên PDK Îranê ji bo derbirîna nerazîbûna xwe li hember sefera Ehmedînejad, şeva çarşem, 08.06.1385(30.08.2006)'an, li cihên li jêr de hatî yên bajarê Mehabadê çalakiyên piropagende birêvebirin û nivîsên partiyê belavkirin:

"Dola Kerwîşke"( rawestgeha1 û 2), bajarokê "Karmendan", hola "Tekstare", Baxê Simayîlaxa", meydana Mamosta Hejar, derdora bazarê, Ferhengiyan, Wefayî, Çarrêya Mewlewî û nêzîkê xwendingeha Şehrîkendî.

**Pîranşar**: Di bin çavdêriya tund û berfireh ya ewlekariyê de Ehmedînejad, roja pêncşem, tevî mela Heseni, pêşnimêjê Urmiyê, seredana Pîranşarê kir. Di heman bajarî de jî piraniya kesên ku çûbûn pêşwaziyê, li Serok Komar, kirêgirtiyên rejîmê û hin kes bûn ku bi neçarî anî bûn. Her weke bajarê Mehabadê ji bo derbirîna nerazîbûnê xelkê li dema axavtina Ehmedînejad de, ji cihê civînê derketin.

**Bokan**: Biryar bû ku roja şemî, 11.06.1385(02.09.2006)'an, Ehmedînejad, seredana Bokanê bike.

Hêjayî gotinê ye ku rejîmê ji bo birêvebirina rê û terzên ewlekariyê hêzeke zaf li Tehranê anî bû bajarên Mehabad û Bokanê û Helîkopterên rejîmê il ser esmanê bajarên han berdewam digeriyan. Her wiha ji bo pêşîgirtin li her cure nerazîbûnekê û tirsandina xelkê, bi dehan kesan ji bajarên navhatî de hatine dest biserkirin û li wan çend rojan û berî çûna Ehmedînejad bo Bokanê, caşên ku pêştir di nava bajar de li hev di civiyan, hatibûn çekkirin.

## Gerek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

**01.09.** Roja Cîhanî ya Aştiyê.

**02.09.1985** – Komkujiya xelkê gundê Qarnê ji aliyên hêzên Komara Îslamî ya Îranê. Di encama vê cinayeta dijî mirovî de 68 kes hatin kuştin.

**03.09.1945** – Dawî pêhatina şerê duyem yê cîhanê di pişka Asiyayê de bi têkçûna Japonê.

**05.09.1990** – Pêşmergeyên hêza Qendîlê li devera Pîranşerê ketne nava telika teqînên rejîmê û 8 Pêşmerge bi navên Mela Hesen, Dehşî, Celal Zendî, Muhsin Nezrî, Hesen Xalidnejad, Mihemed Dinaw, Şêxe Dişmîrî, Osman Ehmedî û Ebabekir Mihemedî şehîd bûn.

**06.09.1988** – Qirkirina bikom ya girtiyên siyasî li Îranê de ku nêzîkê mehek û nîvan dom kir, dest pê kir. Di vê midehê de bi hezaran girtiyên siyasî hatne îdamkirin. Di nava wan goriyên cinayeta rejîma Komara Îslamî ya Îranê de hindek ciwanên Kurd jî hebûn.

**08.09.1984** – Yîlmaz Guney, fîlmsazê navdar yê Kurd wexera dawî kir.

**09.09.1996** – PDK Îranê di kongireya 20'emîn ya Rêxistina Enternasyonala Sosyalîst de weke yekemîn partiya Îranî û Kurdistanî weke endam hate wergirtin.

**10.09.1939** – Destpêkirina şerê duyem yê cîhanê bi êrîşa Almanyayê bo ser Polonyayê.

**10.09.1985** – Koça dawî ya helbestvanê Kurd, Şamî Kirmaşanî.

**11.09.1961** – Destpêkirina şoreşa Eylûlê di Kurdistana Îraqê de.

**11.09.2001** – Çend balafirên Amerîkayî ji aliyê terorîstan ve hatne revandin û ji bo encamdana kiryarên terorîstî di avahiya Rêxistina Ticaretê ya Cîhanî û Pêntegonê li Niyoyorkê mifah jê hate wergirtin ku di encam de bi hezaran kes bûne gorî.

**12.09.1980** – Kodetaya Leşkerî li Turkiyê û cîgirkirina hikûmeta leşkerî di Kurdistana Turkiyê de.

**13.09.2004** – Yekemîn Kongireya Yekîtiya Jinên Demokrat ya Kurdistana Îranê li jêr navê **"çelengkirina vê Yekîtiyê bona ber bi pêşve birina xebata wekhev ya jinên Kurdistanê û tevgera neteweyî û demokratîk ya gelê Kurd"** hate lidarxistin.

**14.09.1986** – Mixabin di şerekê de tevî Komelê de 4 Pêşmergeyên hêza Beyan bi navên Ehmed Xizrî, Mihemed Pûrhimet, Kemal Ostad Îbrahîm û Cefer Nûmuselman şehîd bûn.

**15.09.1975** – Ayetula Kurdistanî, zana û mamostayê Kurd, koça dawî kir.

# Konferansa Navneteweyî Ya Lêkolînên Kurdî

**Amadekar: Azad Kurdî**

Di rojên 6 heya 9'ê Îlonê de, hemberî 18 heya 18'ê Xermanana 1385'ê Rojî, **Konferansa Navneteweyî ya Lêkolînên Kurdî** li bajarê Hewlêrê, ji aliyê Enistîtuya Kurdî ya Parîsê û bi hevbeşiya Zanîngeha Selahedînê û bi piştgiriya Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Wezareta Karên Derve ya Fransayê di yek ji holên Zanîngeha Selahedîn hate lidarxistin.

Bernameya karê Konferansê bi vî awayê jêr dest pê kir:

Roja çarşem, seet 15:00 heya 15:20 deqedeyên paşnîvro vekirina Konferansê û destpêka gotar û lêkolînan bû ku ji aliyê kesayetiyên jêr hate pêşkêşkirin:

1. Dr. Kendal Nezan, Serokê Enistîtoya Kurdî ya Parîsê.
2. Dr. Mihemed Sidîq Xoşnaw, Serokê Zanîngeha Selahedîn
3. Dr. Mihemed Îhsan, Wezîrê Karên Derveyî Hikûmeta Herêma Kurdistanê.

Demjimêr 15:20 heya 19:00'ê êvariya heman rojê, panela yekem a Konferansê li ser mijara **lêkolînên Kurdî li Firansayê, ziman û wêje**, dest pê kir. Serokê civîna han Dr. "Jayce Blau", profesor ji Zanîngeha "Emeritus"ê bû.

Di vê panela roja yekem ya xebatên Konferansa Navneteweyî ya Lêkolînên Kurdî de, kesayetiyên jêr gotar û lêkolînên xwe pêşkêş kirin:

Dr. "Pierre Lecoq", profesor ji "The Ecole partique des Havtes Etudes ya Parîsê

Dr. Salih Akîn, Zimanzan û hevkarê Profesor ji Zanîngeha "Rouen"a Fransayê.

Birêz Îbrahîm Seydo Aydoxan, zimanzan û xwendekarê Dukturayê.

Dr. "Gerard Gautier", Pispor di warên mirovnasî û Kompûterê

Dr. "Clemence Scalbert"

Xatûna "Sandrine Traida", zimanzan û xwendekarê Duktorayê

Birêz "Yoanis Kanakis", pispor di warê muzîka nejadî

Roja pêncşem, 7'ê Îlonê, seet 10'ê sibê heta 13'ê paşnîvro, yekemîn panela roja duyem ya Konferansê li ser mijara **lêkolînên Kurdî li Firansayê – Zanistên Civakî** dest pê kir. Serokê civînê Dr. Hemîd Bozarsalan, pirofesorê zanistên civakî li "The Ecole des Houtes" ya Parîsê bû.

Pişikdarên wê panelê ji wan birêzane pêk hatibû ku her yek ji wan lêkolînên xwe pêşkêş kirin:

Birêz "Boris James", dîroknas û xwendekarê Duktorayê

Dr. Efrem Îsa Yûsif, fîlozof û nivîskar

Dr. "Flonerence Hello", dîroknas

Xatûna "Julie Pernandes de Barena", dîroknas

Birêz "Chris Ketchra", nivîskar û rojnamevanê navdar yê Fransî.




Wêne, Paneleke Konfiransê. Ji çepê: Xalid Xeyatî, Reşo Zîlan, Berzo Elyasî, Dr. Xelîl Salih, Mihemed Tayfon û Dr. Mîno Elîniya

Seet 14:00 heya 18:00'ê paşnîvro, Paneleke din li ser **lêkolînên Kurdî li Almaniya** dest pê kir û serokê civînê jî Dr. "Philip Kreyenbroek", profesor ji Zanîngeha "Georg – August" li "Gottingen"ê bû.

Kesayetiyên ku di vê para Konferansê de lêkolînên xwe pêşkêş kirin, pêkhatibûn ji:

Dr. Xalid Cindî Reşo, Profesorê alîkar ji Zanîngeha "George August", li "Gottingen"ê.

Dr. "Birgit Amman", ji Rêveberên Navenda Ewropayê ji bo lêkolînên Kurdî li Berlînê.

Dr. "Eva Savelsberg", ji Rêveberên Navenda Ewropayê ji bo lêkolînên Kurdî li Berlînê.

Xanima Perwîn Mihemed Weysî, Xwendekarê Duktorayê ji Zanîngehê "George August" li "Gottingen"ê.

Xatûna "Eszter Spat", xwendekarê Duktorayê ji Zanîngeha Ewropaya Navîn, Bodapest.

Dr. Xena Omer Xalî, Fîlozof û pispor di lêkolînên olî de.

Roja înê, 8' Îlona 2006'an, panela yekem ya roja sêyem ya karên Konferansê seet 10'ê sibê heya 12:00'ê nîvro li ser **lêkolînên Kurdî li Welatê Swêdê** dest bi xebatên xwe kir.

Serokatiya vê civînê ji aliyê Dr. Xelîl Salih, zanayê siyasî ji Enistîtuya Kurdî ya Parîsê hate birêvebirin.

Lêkolînvanên vê parê ku berhemên xwe pêşkêş kirin, pêk hatibûn ji:

Birêz Reşo Zîlan, Serokê Beşa Ziman û Wêjeya Kurdî ji Enistîtuya Kurdî ya Parîsê.

Rêzdar Mihemed Tayfan, zimanzan û dîroknas.

Dr. Mîno Elîniya, Civaknas li welatê Swêdê.

Birêz Berzo Elyasî, xwendekarê Duktorayê ji para zanistên civakî li Zanîngeha "Mid – Sweden".

Birêz Xalid Xeyatî, lêkolînvan ji Enistîtuya lêkolînên civakî ji Zanîngeha Lînkopîng ya Swêdê.

Paşnîvroya wê rojê seet 14:00 heya 16:30 deqeyan, paneleke din a Konferansa Navneteweyî ya Lêkolînên Kurdî li ser mijara **lêkolînên Kurdî yên li Amerîkayê** dest pê kir. Serokê civîna han "Jnathan Randal", nivîskar û rojnamevanê navdar yê Amerîkayî bû.

Axiverên vê panelê pêk hatibûn ji:

Dr. "Keith Hitchins", profesor ji Zanîngeha "Illinois" ya "Urbana Champaign".

Dr. "Michael Gunter", profesor ji Zanîngeha teknolojiyê ya "Tennessee"iyê

Dr. "Janet Klein", profesorê alîkar ji zankoya "Akran" ya "Ohio"

Dr. "Nicole F.Watts", profesor ji Zanîngeha Welayeta Sanfransîskoyê

Seet 17 hey jêr di vê beşa karê konferansê de lêkolînên xwe ên taybet li ser mijara panelê pêşkêş kirin:

Dr. "Joost Jongerden", profesorê alîkar ji zanistên civakî yên Komeleya Zanîngeha "Wagenimgen" û Enistîtuya "Athena – Vrije" ya Amesterdam a Holandayê

Dr. Haşim Ehmedzade, wanebêj ji Zanîngeha " Exter"ê li Brîtaniyayê

Dr. "Mirella Galletti", profesor ji Zanîngeha "Naples"ê

Dr. "Jordi Tejel", dîroknas û civaknas ji Swîsê

Rêzdar Ebdula Keskîn, Serokê Weşanxaneya **Avesta**'yê li Stenbolê

Birêz Karlîn Çaçan, rojnamevan ji Ermenîstanê.

Roja çemî, 9'ê Îlonêa 2006'an, wate roja dawî ya xebatên Konferansa navneteweyî ya lêkolînên Kurdî, panela yekem di bin navê **rewşa lêkolînên Kurdî li Kurdistanê** ku di 3 mijar û 6 rûniştinên cuda de bi vî awayê jêr birêve çû:

**Mijara yekem, civaknasî**

Rûniştina yekem ji seet 9'ê heya 10'ê sibê kişand û serokê civînê Dr. Mihemed Sidîq Xoşnaw bû.

Kesayetiyên ku di vê panelê de lêkolînên xwe pêşkêş kirin, ev bûn:

Dr. Xelîl Îsmaîl Mihemed bi mijara **Pirsgirêka welatiyan li Herêma Kurdistana Îraqê**

Dr. Nûrî Yasîn Hewramî

Dr. Qadir Mihemed Pişderî bi mijara **Bingehên mirovî yên jiyana rêxistinî û partîtiyê li Kurdistanê**

Dr. Ehmed Mîrza bi mijara **pêwendiyên berdewam yên dîrokî û şaristaniya Kurdistanê di çaxên ber yên kevin heya sedsala bîstan**

Civîna duyem, demjimêr 10 heya 12'ê paşnîvro dest bi karên xwe kir. Serokê rûniştinê Dr. Reşad Mîran bû. Van hêjayên jêr lêkolînên xwe pêşkêş kirin:

Dr. Tahir Heso Zêbarî bi mijara **pêkhateya civaka Kurdî**

Dr. Ebdulhemîd Seîd bi mijara **pirsgirêkên civakî yên civaka Kurdistanê**

Dr. Ehmed Ebdulezîz

Mamosta Naznaz Mihemed Qadir bi Mijara **regezên bi Erebkirina Kultura Kurdî**

Birêz Arif Zêrevan bi mijara **Alfabeya rastnivîsîna Kurdî**. Mamosta Arif di lêkolîna xwe de li ser hewcehiya bikaranîna Alfabeya Latînî sekinî û li ser aliyên erênî û nerênî yên her du alfebayan axivî û pêşniyar kir Kurd zimanê xwe bi alfabeya Latînî bi kar bînin.

Civîna sêyemîn, seet 12 heya 13:30'ê paşnîvroyê dom kir. Serokê rûniştinê Dr. Muhsin Mihemed Husên bû. Di vê panelê de van Kesayetiyên jêr lêkolînên xwe raberî beşdarên konferansê kirin:

Dr. Mihemed Ebdula Omer

Dr. Hekîm Ehmed

Dr. Mihemed Ebdula Kakesor

Xanima Sonya Sidîq bi lêkolîna **civaka sivîl û olî-bajarê Hewlêrê** ku tevî birêz Sero Qadir bi hev re encam dabûn, xatûna Sonyayê di Konferansê de xwend.

**Mijara duyem, Ziman û Wêje** Civîna yekem ya vê mijarê ji demjimêr 15 heya 16'ê êvar dom kir. Mamostayeke Zanîngeha Selahedînê li cih Dr. Kemal Fuad serokatiya rêvebirina panelê girte stû. Axivtinerên vê civînê evên jêr bûn:

Dr. Îbrahîm Ehmed Husên Şivanî, bi lêkolîna: **nekifşî di helbestên Kurdî yê Mehwî de**

Dr. Fireydûn Berzencî, bi lêkolîna: **girîngîdan bi zaravên zimanê Kurdî**

Dr. Ebdula Husên, bi lêkolîna: **Ferq û cudahiya zimanê civakî yê gund û bajaran**

Dr. Ebdulwahîd Dizeyî bi lêkolîna: **Rêzgirtin di kultura Kurdî de**

Ji seet 16:30 heya 18'ê êvariya wê rojê, civîna duyem ya Konferansa Navneteweyî ya Lêkolînên Kurdî dest pê kir. Serokê civîna han Dr. Şukiriye Resûl Îbrahîm bû. Di vê panelê de kesayetiyên jêr lêkolînên xwe pêşkêş kirin:

Dr. Dilşad Elî bi lêkolîna: **Girîngiya bikaranîna Alfebaya hevbeş, di warê Kurdolojiyê de**

Dr. Refîq Şivan bi lêkolîna: **Kurdnasî û bandora wê di nasandina Kurdan de**

Dr. Hogir Mehmûd Ferec bi lêkolîna: **Di perawêza zimanê wêjeyî û zimanê hevgirtî de**

Dr. Mistefa Zengene bi lêkolîna: **Şirovekirina wateya civakî di hinek warên nerênî de**

Panela dawî ya roja xilasbûna xebatên Konferansê li ser **lêkolînên Kurdî çi ne?** Dest pê kir û serokê civînê Dr. Selah Selahedîn, li cihê Dr. Şefîq Qezaz bû. Di vê panelê de kesayetiyên jêr lêkolînên xwe xwendin:

Dr. Mihemed Dilêr Emîn

Dr. Eta Qeredaxî

Dr. Hîmdad Husên

Dr. Sidîq Salih

Di dawiya hemû panelan de dem û derfet ji beşdarên konferansê re dihat dayîn û di tev civînan de pişikdaran bi awayekê çeleng û berfireh dîtin, têdîtin û pêşniyarên xwe derheq lêkolînan dianîn ziman û bas, gengeşe û gotûbêj di navber her du aliyan bi awayekî zanistî û akademîk birêve diçû.

Konferansa Navneteweyî ya Lêkolînên Kurdî, yek ji konferansên herî giring di asta cîhanê de bûye ku li ser warên cur bi cur yên lêkolînên zanistî li ser Kurdan hate lidarxistin û her wiha ser axa azad ya Kurdistana Îraqê hate pêkanîn.



Wêne: Dîmenek ji beşdarên Konferansa Navneteweyî ya lêkolînên Kurdî, roja sêyan, 08.09.2006án

# Bibîranîna Dr. Sadiq Şerefkendî Hayderê Rêya Tekoşîna Me Ye!

Ji bo bibîranîna 14'ehemîn salvegera şehîdên Mîkonosê, YCDK Îranê li welatê Swêdê, rê û resmeke taybet bi beşdariya tev azadîxwaz û welatparêzan birêve dibe.

Bervar:

Roja yekşem, 26.06.1385(17.09.2006)'an,

Demjimêr: 15:00'ê piştînîvro.

Cih: Vestros, hola **"A.B.F"**.

Di vê rê û resmê de:

1- Birêz Dr. Husên Xelîqî.

2- Birêz Qasim Qaremanî.

3- Birêz Rehîm Reşîdî.

Li ser aliyên cur bi cur ên bûyera Mîkonosê û kesayetiya şehîd Dr. Sadiq Şerefkendî dê bas û şiroveyan pêşkêş bikin.



YCDK Îranê - Swêd

Komîteya Vestrosê

Ji bo agehiyên pêtir:

**0046 736 10 14 16**

# Carnameya Pêşgîrî Ji Tund Û Tûjî Dijî Jinan

Beşa 1

**Werger: Selîm Zencîrî**

Biryarnameya 48/104 a civata giştî ya Rêxistina Netewên Yekbûyî 25’ê Novamberê, wekî Roja Cîhanî ya rakirina tund û tûjî dijî jinan hatiye binav kirin. Ev roje, 17’ê Septambera 1999’an ji aliyê civata Giştî ya Neteweyên Yekbûyî ve, di civîna 83(gera 54)’an de bi roja cîhanî ya tund û tûjî dijî jinan hatiye binavkirin. Carnameya pêşgîrî ji tund û tujî dijî jinan, pejirandiya civata Giştî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, merem ji şideta dijî jinan, erk û rola dewlet û rêxistinên navneteweyî di vê derheqê de zelal dike.

**Civata Giştî**

Bi haydar bûn ji vê hewcehiya bilez ku maf û



bingehên têkildar bi wekhevî, tenahî, azadî û meznahiya hemû mirovan, divêt bi awayekî cîhanî li ser jinan bihên berçavgirtin.

Bi baldan bi vê ku ev maf û bingehane, di girove û daxuyaniyên navneteweyî de, bo mînak di **carnameya cîhanî a mafê mirovan**(1), **peymannameya navneteweyî a mafên medenî û siyasî** (2), **peymannameya navneteweyî a mafên aborî, civakî û kulturî** (2), **ji navbirina hemû awayên ferq û cudahîdananê dijî jinan** (3), **peymannameya dijî îşkence û riftar, yan cezayên tund û tûj, nemirovî û tejî ji sivikatî** (4), de rêz lê hatiye girtin.

Bi haydarbûn ji wê ku birêvebirina herçiqas kariger a peymana nehêlana hemû awayên cudahîdananan dijî jinan, alîkariyê bi nehêlana tund û tûjiya beranber dijî jinan dike û peymana nehêlana şidetê bi dijî jinan bi wî awayî ku li vê peymannameyê de dikeve ber bas, vê pêvajoyê bihêz û tewaw dike.

Nigeranî ji vê çendê ku tund û tûjî dijî jinan astenga gihîştin bi wekhevî, pêşkevtin û aştiyê ye, her weke di stiratejiyên pêşdîtin yên Konfiransa Nayrobyayê ji bo pêşkevtina jinan hatiye rohn kirin û di nava wan de hin terh û gelale ji bo berxwedanî kirin li hemberî tund û tûjî dijî jinan û bi merema birêveçûna kemilî a peymana rakirina hemû awayên cudahî dananê dijî jinan hatiye pêşniyar kirin.

Rawestan li ser vê ku şîdet dijî jinan, esas û bingehek e ji bo binpêkirina mafê mirov û azadiyên bingehîn yên jinan û destgihîştina jinan bi van maf û azadiyane heya qasekê yan jî bi tevahî red dike.

Nigeranî li sernekevtin li piştevanî û jêhelbirina van maf û azadiyane di dirêjheyam de li dor tund û tujî dijî jinan.

Bi haydarbûn ji wê ku tund û tûjî dijî jinan nîşandereke ji bo nîşandana newekheviya dîrokî a pêwendiyên desthilatê di navbera jin û mêran de ku yê bûye sedema bindestkirin û cudahîdanana jinan ji aliyê mêran ve û pêşgîrî ji berbipêşde çûna bi tewahî a jinan lê derdikeve.

Herweha tund û tûjî dijî jinan yek ji van mikanîzmên civakî yên girîng e ku jinan neçar dike ku bi pile, paye û pêgeheke nizimtir bi nîsbet mêran razî bin.

Nigeranî ji wê ku hin ji girûpên jinan bo mînak jinên ser bi girûpên kêmanî, jinên xwecih, jinên penaber, jinên koçber, jinên ku ji gund yan deverên dûrdest de dijîn, jinên bê serperişt, jinên bendkirî yan destbiser, keçên nûciwan, jinên nivîşkan û siqet, jinên bi temen û jinên deverên şerdîtî bi taybet li hemberî tund û tûjiyê de jar û lawaz in.

Bibîrxistina encama paragirafa 23’a biryarnameya 24’ê Maya 1990’an a Komîsyona civakî (hejmar 1990/15) û hestkirin bi vê ku tund û tûjî dijî jinan di malbat û civakê de xurt bûye û li sînorê dahat, tex û qat û kulturê de dibihore, divêt gavên bilez û bibandor bo jinavbirina vê berçaviyê bihên avêtin.

Herweha bibîrxistina biryarnameya 1991/18’a Komîsyona Aborî û Civakî a 30’ê Maya 1991’an ku Komîsyon têde pêşniyara amadekirina belgenameyên navneteweyî aniye berbas ku bi awayekî aşkera balê dide doza tund û tûjiya bi dijî jinan.

Weke pêşwazîkirin ji rolekê ku tevgerên jinan di rakişandina roj bi roj pêtir a bal û serincan bo aliyê kakilê, micidbûn û aliyên din yên doza tund û tûjiya bi dijî jinan heye.

Bi destpêkirina vê tirs û xeterê ku delîve û derfeta jinan ji bo bidestveanîna wekheviya maf û wekhevî di warê civakî, siyasî û aboriya civakê de bi sedemên cur bi cur û yek ji wan tund û tûjiya xurt û berdewam, berteng û sinordar in.

Bi baldan bi van xalên ku li serê de îşare bi van hatekirin, em bawer in ku pênaseyeke giştgîr û rohn bo tund û tûjî dijî jinan, carnameyeke rohn li ser van mafên ku divêt bihên berçavgirtin û nehêlana tund û tûjî dijî jinan li hemû terz û awayan de garantî dike, herweha soz û peymanek ji aliyê dewletan ve bi merema rêzgirtin ji berpirsyariyên wan û soz û peymanek jî ji aliyê hemû civaka navneteweyî ve ji bo nehêlana tund û tûjiyê dijî jinan hewce ye. Lewra bi fermî carnameya rakirina tund û tûjî dijî jinan di jêr de dixin ber çavên we û em li ser vê sor û pêdagir in ku ji bo nasandin û rêzgirtina wê ji aliyê hemû kesê ve, divêt hemû hewl û tekoşînek hewce bihê dayîn:

# 11 Kes Li Benda Kevirbara nê Ne



9 jin û 2 mêr di girtîxaneyên Îranê de li benda bi rêveçûna cazayê kevirbaranê ne.

1. **Îran A** ji tayifeyeke Bextiyariyan e û bi guneha axavtin tevî kurê cînarê xwe, bi kevirbaranê hatiye mehkûm kirin.
2. **Xeyriye** ya 38 salî, xelkê bajarê Bêhbehanê bi sûça zina û kuştina mêrê xwe bi kevirbaranê hatiye mehkûmkirin.
3. **Suxra Molayî** bi guneha zina û pişikdarîkirin di kuştina mêrê xwe de bi kevirbaranê hatiye mehkûmkirin.
4. **Fatime** xelkê Tehranê ye û bi guneha zina û pişikdarîkirin di kuştinekê de hatiye mehkûmkirin.
5. **Perîsa A** jineke 28 salî ye û bi guneha laşfirotinê ku li ser neçarkirina mêrê wê bûye.
6. **Kobra M** jineke 44 salî û bajarê Sinê ye, gunehbar e bi zina û fahişetî û pişikdarî di kuştina mêrê xwe de.
7. **Şemame Qurbanî** xelkê bajarê Nexedê ye û bi guneha zina û pişikdarî di qetlê de.
8. **Eşref,** jineke xelkê bajarê Meşhedê ye, bi guneha zina û pişikdarîkirin di kuştina mêrê xwe de.
9. **Haciye Îsmaîlvend** bi guneha zina û pişikdarî di kuştina mêrê xwe de.
10. Mêrek bi navê **Necef A** ku guneha wî ne diyar e.
11. Mêrek din bi navê **Ebdula F** ku guneha wî jî ne diyar e.

**Jêder: “akhbar –rooz”**

# 770 Milyon Nexwendewarên Temen Jor Di Cîhanê De Hene

Kofî Enan, Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî di peyamekê de bi hinceta Roja Navneteweyî ya Xwendinê, serbarê eyankirina vê rastiyê ku hêj 770 milyon kesên temen jor di cîhanê de nexwendewer in, daxwaza cehd û tekoşîneke zêdetir di astê neteweyî û navneteweyî de ji bo çêtirbûna asta xwandewariyê kir.

**Çavkanî: "www.akhbar-rooz.com"**



# Bê Dengî Li Hember Mifahwergirtina Nebaş A Zayendî Li Jinên Karker Li Îranê



Şîrketên şexsî ku hemû heyîna wan tenê ji hêlek telefonê, çend kursî û kompyoterekê pêk tê û roj li pey rojê di Tehrana paytext de zêde dibin, her di yekemîn cehd û hewla xwe de bi awayekê bêşermane li rojnameyan de wiha gaziya jinên ku di pey kar digerin, dikin: "**Keçek nezewicî û dev biken**" û di pêvajoya bi nav got û bêjê de jî, di rastî de wan li gor xwestekên xwe diceribînin, lewre divêt li gor dilê wan bin. Di vê derheqê de jî xwedê neke pêyê keçên ciwan bikeve deftera berpirsê wan şîrketan, ji ber ku renge hin tiştan bibînin ku nabe bihên dîtin.

Xatûna Dr. Mehdîs Kamkar, tevî erêkirina rastiya ber bi zêdebûna mifahwergirtina nebaş a zayendî, li jin û nemaze keçên ciwan re radispêre ku li hember vê çendê de bêdeng nemînin û berevaniyê ji şeref û kesayetiya xwe bikin. Ev xatûna li ser vê baweriyê ye ku keçên han di rastî de nizanin hawar û dengê xwe ji kê re bibin.

Herweha pêşniyar dike jin yan keçên karker divêt her ji roja yekem de merc û bernameyên karê xwe yek bi yek ji xwedî karan re rohn bikin. **Çavkanî: "Radio Farda"**

# Kuştina welatiyekê li Geliyê Qasimloya Urmiyê

Roja 18.06.1385'ê Rojî (09.09.2006)'an, kesek bi navê Mehdî Cîhan Heftsar, kurê Serbaz, yê gundê Heftsar ya herêma Biradost ya bajarê Urmiyê, temen 23 salî li Geliyê Qasimlo û li rex gundê Sêkaniya bi destê jinekê û çend kesên din yên nenas hate kuştin. Piştî peydabûna meytê navhatî, roja 20.06.1385 (11.09.2006)'an bi axê hate sipartin. Jina ku Mehdî kuştiye niha li Îdareya "Agahî" ya Urmiyê de hatiye binçavkirin. Li gorî agahiyan, wê jinê heya niha bi çend qetlan îtiraf kiriye.

Tê gotin ku kuştina Mehdî Cîhan Heftsar li ser madeyên bêhişker be.

# Dîsan Xweşewitandin



Keçeke temen 17 salî bi navê **Ç** keça **M** xelkê Merîwanê xwe şewitand û bi sedema xurtiya şewitînê jiyana xwe ji dest da. Sedema vê xweşewitandin ê pirsgirêkên malbatî hatiye diyarkirin.

Herweha keçeke din temen 20 salî bi navê **S**, **B** xelkê Merîwanê ku bavê wê tune ye û dayika wê jî dîsan zewicî ye û ew jî li bal mamê xwe dijiya, bi sedema zilm û zora mamê xwe, agir berda xwe û jiyana xwe ji dest da.

**Jêder: "www.akhbar-rooz.com"**

# Xendiqandina Zarokekê Bi Destê Dayîka Xwe

Li bajara Hersînê ya Kirmaşanê, jineke 28 salî ku bi sedema têkiliya Zayendî (cotbûnê) ya bêy zewacê tevî kur mamê xwe pêgiran dibe, zarokê xwe piştî bûnê ji bo şermezarnebûna xwe, dixendiqîne û davêje dûr.

**Jêder: "ÎSNA"**



# Dîsan Keçek Hat Serbirîn

Keçeke ciwan bi navê **Emîre Dadguster** di jêr sîbera namûsê de li bajarê Merîwanê bi destê bav û bira û kur mamê xwe bi terzake hov û dirindane bi tevir hate serbirîn.

**Jêder: "zane kurd.net"**

**Neviyê Dr. Qasimloyê Nemir Zewicî**

# Dawetek Bi Çek Û Cilên Pîroz Yên Pêşmergatiyê Li Bajarê Pragê

**Fuad Sîpan**
**Almanya, 31.08.2006**

Neviyê lehengê Kurd Dr. Ebdurehman Qasimloyê nemir, Robert Norlîn di êvara 21.08.2006'an de li Piraga paytext di baxçê mala birêz Dr. Yekta Geylanî (Dr. Yekta Uzunoglu) de bi keçikeke Çekî bi navê Barbora ku gelek bedev û xweşik e re zewicî. Beriya ku dawet dest pê bike, bûk û zava bi kincên Kurdan yên gelêrî, herwiha bi şal û şapikên Pêşmergeyên qehreman rawestiyan pêşiyan kamerayan.



**Ji çepê, Fuad Sîpan, keçika Dr. Qasimlo û diya zava: Mîna Xan, zava: Robert dest bi çek, bûk: Barbora Xan, maliya lehengê Kurd Dr. Qasimlo: Nesrîn Xan û birêz Dr. Yekta**

Di pê kişandina wêneyan re, maliya birêz Dr. Yekta, Monîka Xan derket ser xanî û dest bi teqîna gulan kir. Mirov digot qey ev der ne Prag e, Kurdistan e. Paşê bi xwarin û vexwarinê dest bi şahiya dawetê hate kirin. Îhsan û Metîn bi stran û awazên Kurdî beşdarvan heta nîvê şevê bi kêfxweşî coş kirin. Beşdarvanên dawetê jî li Piraga paytekt li serê çiya li mala birêz Dr. Yekta di nava daristaneke gur de bi lîstikên Kurdî rengekî Kurdistanî dane dawetê. Dawetê bi patpatokên hewayî berdewam kir û di dawî de di atmosfereke pir xweş de dest bi mijûlî û suhbetên şêrîn hate kirin.

Bê guman dil pir dixwest ku di rojeke wiha xweş de Dr. Ebdurehman Qasimloyê nemir jî di nav me de ba, tama kaliktiyê derxista û bi daweta neviyê xwe şa biba. Lê mixabin dijminê tirsonek, newêrok û xayîn e ku ew roja xweş layiqî lehengê Kurd û Kurdistanê nedît. Lê çiqas jî şehîdê Kurd Qasimlo di nav me de nebû jî, dilê me bi wî re bû û me ew bi dilgermî bi bîr anî. Mala camêr birêz Dr. Yekta ava be ku ewî bi layiq berpirsiyariya xwe li hemberî lehengê Kurd Qasimlo bi cih anî. Ez ji dil û can spasiya wî, camêrî û mazûwaniya wî dikim ku wî dilsoziya xwe li hemberî Qasimloyê nemir da xuyakirin. Mirov di nûra rûyê birêz Dr. Yekta de didît ku ji kêfa wî re qet gotin tunebû. Çimkî mînanî ku ew di şahiya daweta kurê xwe de bû.

Li ser pirsa min ji neviyê Qasimlo û zavayê teze Robert Norlin wî wiha bersiva min da û got ku ew bi kalikê xwe Dr. Ebdurehman Qasimlo pir serbilind e û kalikê wî heta roja qetilkirinê ji bo ku çareseriyeke aştiyane li Kurdistanê çê bibe, xebitî.

Hêjayî gotinê ye ku dawet bi taybetî ji kesên malbatî û pir hindik dostên malbata bûk û zavê pêk hatibû. Ji beşdarvanan yên navdar ji Komara Çekê nivîskarê jînenîgariyê(Bîogirafiyê) yê herî navdar, Xanima Jana Klusakova û kurê xwe "Vit Klusak" beşdar bûn. Xanima "Jana Klusakova" li ser jînenîgariya Serok Komarê Çekê Prof. Vaslav Klaus jî pirtûk nivîsiye. Wê herwiha li ser jînenîgariya birêz Dr. Yekta jî pirtûkek amade kiriye û niha di çapxanê de ye. Kurê wê jî Fîlimçêkerê Komara Çekê yê herî navdar e. Ji Almanya jî pismamê Dr. Eburehman Qasimlo birêz Ebdulah Îzetpûr, siyasetvanê Kurd birêz Siracedî Ogûz, hozanê Kurd Îhsan û mûzîkvan Metîn di dawetê de beşdar bûn.

# Lênihêrîneke Dîrokî Li Ser Edebyata Diyalekta Başûrî A Zimanê Kurdî (Goran)

**Dr. Dîlan Rewşenî**
**Werger: Şerîf Felah**

Edebiyata Kurdî îro berhem û derencama edebiyateke kevn û resen û li mêjve a ser zar û zimana ye ku çend sedsal e di nava Kurdan de carr e û geşe kiriye. Ev edebiyat(tore) ya kevnar bê şik û guman reh û rîşeya wê di nava kurahî û şêweya jiyana xelkê Kurd û Kurdistanê de ye ku divegere bo ser çend sedsala berî serhildana Îslamê. Beşeke berfireh û berçav ji berhemên toreyî ên Kurdistanê ku nîşanderê çawaniya jiyana xelkê û sazan û xwe rêxistina tevî vê jîngehê de bûye, bi kome sebebkarên cuda û pitir li pêvajoya dîroka pir ji livlivîn û pir aloz de ji nav çûye. Herçend ku zaravayê Goran jî çiqên başûrî ê zimanê Kurdî li herêmên Goran û Hewraman, ji radeya berdevk û navdarên wê gelekî kêm bûye, lê ev zarave xwediyê hinek ji berhemên herî rîşeyî û resen ên zimanê Kurdî bi giştî ye. Diyalekta Goran ji sedsala 7'ê Zayînî pêde zimanê fermî ê derbarên mîrnişînên Kurd bûye. Desthilata mîrnişînê Erdelan ku ji nîva sedsala dazdan heya hejdan de hem hakimê herêmeke pan û berfireh ji sererdê Kurdistanê bûye û zaravayê Goran weke zimanê îdarî yê desthilatdariya xwe bi kar anîne. Di rastî de renge bê eger jî nebe heke em bibêjin di toreya Kurdî de peyva Goranî bi wateya awaz û helbestxwandina toreyî jî bi kar tê. Bi vê şirovekirina kurt ciyê heyrîmanê nine heke em bibêjin ku paşmayiya berhema herî kevn a toreyî a kurdî ye di nava zaraveyên başûrên zimanê Kurdî de. Gotina ola Yarsan bi zaraveya Hewramî, û sirûd û vehûnandiyên Baba Tahirê Hewramî bi zaraveya Lekî li sedsala dehê a Zayînî, ji mînakên kevn ên toreyî yên nivîsayî ên Kurdistanê ne bi zimanê Kurdî.

Hinek ji destnivîsên Baba Tahir heya îro jî li mozexaneya bajarê "Qunyê" li welatê Turkiyê de ne. Helbestên du beytî ên Baba Tahir heya îro jî bûne benûştê devê pîr û kalên ola Yarsan. Her wek Baba Tahir bi xwe jî ji mezinên vê olê tê hesibandin.

Ji navdarên din ên edebiyata Kurdên Başûra Rojhilata Kurdistanê em dikarin ji helbestvanên weke: Perîşan Dînewerî li sedsala çarê Zayînî, **Mistefa Bêsaranî** ji sedsala şanizdehan a Zayînî, **Mihemed Kenuleyî** ji sedsala hevdehê Zayînî, **Xanay Qubadî** ji nîva duyê a sedsala hevdehemîn, **Serheng Elmasxan** û **Mîrza Şerîfê Dînêwerî** ji destpêkên sedsala hejdehan a Zayînê, **Şeyda Hewramî** di dawiya sedsala hevdê Zayînî û **Mihemed Welî Kirmaşanî** li destpêkên sedsala bîstan a Zayînî nav bibin.

Divêt em bibêjin ku bi sedema nebûna sîstemeke perwerde û hînkirina zimanê Kurdî, gelek ji nivîskarên edebiyata kevn a Kurdî ji bo Kurdzimanan biyanî û ne nasyar e. Ji aliyekê ve ciyê keyfxweşiyê ye ku zaf ji wan destnûsên ku mane bi rêxistin û avakirina sîstemeke neteweyî a perwerde û hînkirina zimanê Kurdî, mirov dikare cî û navendeke buhagiran ji bo geşe û perwerdehiya van berheman xwendingehên Kurdistanê de veket.

Bi vê dîroka kurt û agehdarbûna ji bûna

Dom R. 11

# ŞERDEBÛN

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Şerdebûn an jî pewredehî wekî edilandina liv û tevgerên mirov ên sûdewar û erênî tê dîtin. Ji bo wê divê ku em bêtir têkilî giringiya bizavên mirov bibin û zêdetir serê xwe bi vê yekê re biêşînin.

Her mirov li gorî şert û mercên ku tê de dijî, perwerde dibe an jî tê perwerdekirin. Ji bo wê, divê şert û mercên ku mirov tê de dijî, baş bête nasîn û derfetên perwerdehiyê ji bo wî/wê werin amadekirin

Dîroka mirovahiyê bi qasî dîroka şaristaniyê qedîm e. Ango dem û domana şaristaniyên qedîm bi mirovahiyê re hemsal e. Mirovahiya ku şaristaniyên qedîm afirandiye, tenê li hember xwezayî û afirînekên ku di goşa wê de dijîn, serî hilnedaye, her wiha ji bo ku ji xwezayê jî sûd û fêdeyê werbigire têkoşiyaye û bi nasandina wê re serê xwe êşandiye.

Mirovahiyê, pêşî bi dorhêla xwe ya nêzîk dest bi lêpirsîna jiyaneke aram kiriye û peyre li çar nikarê erdzemîna ku li ser dijî, belav bûye û ketiye nav lêgerînên domdar û dûvdirêj. Hin bi hin nasdarî axê û candar û giyanberên ku li ser axê dijîn, nas kiriye û jiyana xwe spartiye ax û avê. Ax û av li ku bûne, xwe gihandiye wan û dest bi ked hilberîna jiyanê kiriye. Peyre arasteyî jiyaneke aramtir û têkûztir bûye. Ev doman bûye destpêka şerdekirin û şarezabûna mirovan û jiyana wan civatî/civakî. Paşê ketiye nav hewldanên dansîna gerstêrka ku di nava asîmanê heftan de bêstûn û bêsinêde li hawirdora rojê digerin, bûye.. Bi vê yekê jî nayê ser, dikeve nav guherîn û veguherîna rojek tê, gerstêrka ku li ser dijî biçûk dibîne û bitimtêl li rêzemîna jiyan û cîhaneke nenas digere. Û rojek tê hildipeke fezayê, xwe li ser hîvê dibîne.

Zanîn û zanyariyên ku wekî bingeha van pêşveçûn û nûvedaniyên bêsînor têne dîtin, her wext ji perwerdehî û şarezabûna mirov re jî bûne/dibin navgîn. Û ev zanîn û teknolojiya bêdeman îro ji her wextê bêtir rol û rista xwe ya dîrokî dilîze. Zanîn û teknolojiya îroyîn gelek pêngav û nûvedaniyên nû di xwe de dihewîne. Geşedaniyên zanistî yên ku derfet û pêkaniyên mezin didin pêşveçûna teknolojiyê, di kûrahiya fezayê(asîman) de riya jiyaneke nû li ber mirovahiyê vedike. Bi awayekî vekirîtir pêkan e ku ev şarezahî û zanatiya gerdûnî temenê mirov dirêjtir bike û rojekê ji mirina mirov re li çareseriyekê bigere.

Ligel hemû pêşveçûn û şaresitaniyên gerdûnî, îro ro li ser rûyê erdê gelek nanokî û têkeliyên berbiçav jî hene. Bo nimûne, li aliyekî dinê mirov hildipekin fezayê ku li wir



cih û warekî berfirehtir û aramtir ava bike an bibîne; li aliyekî din bi milyonan mirov bi hesreta dilopek av û geza nên dijîn. Hemin ku mirov li aramiya xwe digere, divê ku pêşî mirovahiya cîhanê ku îro wekî malbateke mezin tê dîtin têr û bertêr bike. Heta ku bi gelemperî mirovahî ji tî û birçîbûna rojê xelas nebe, ne hilperîna asîmên û qevastina ser hîvê fêdeyê dide û ne jî aramiya wê ya ser rûyê erdê pêkan dibe. Ji lewre şerdebûn û şaristanî tevahiyê dixwaze û tevahiya şaristaniyê jî li ser hîmê gerdûnîbûneke tevayî ava dibe. Yanî, bi kurtayî aşbûn û arambûna jiyana mirov seranser girêdayî yeksanî û hevpariyeke gerdûnî ye.

Perwerdehî, ji ber ku tevê jiyana mirov dagir dike û hemû liv û tevgerên mirov durist dike, pêdivî û pêwendiya her mirovî/ê rasterê bi perwerdehiyê heye. Zayend, nîjad, çîn, ol, bawerî hest, raman, rewş, kar, pîşe, zanav, temen û kesayetiya mirov çi dibe bila bibe divê pêşî were şerdekirin û perwerdekirin. Cih û warên ku teknolojiya dinê digihêjinê hemû qadên perwerdehiyê ne. Wekî ku li jor jî hate diyarkirin, îro ev rûzemîna ku mirovahiya cîhanê jiyana xwe li ser dikudîne, bûye nola gundekî biçûk û mirovên vê erdzemînê jî bûne endamên malbateke mezin. Ew mirovên ku rûdan û geşedaniyên dinê di heman gavê de dibihîsin û dibînin, dikarin şêwirdarî alîkariya xwe xurtir bikin. Dikarin pirsgirêkên xwe yên gerdûnî guftûgo bikin û çareseriyê hêsantir bikin. Dikarin bi saya lav û amrazên teknolojiyê, hevdû perwerde bikin û arîşeyên navbera xwe bi awayekî zaneyane çareser bikin.

Ligel ku mirov wekî ruhberê herî kamil û kelbeng tê hesibandin jî, mixabin îro jiyanberê herî xisaram, ziyankar û hoveber mirov bi xwe ye. Ango tu lewir û ajalên hov û kovî nikare bi qasî mirov ji ber xwe hilîne û xwe bêtore bike. Sedema vê yekê ne bêperwerdehî ye; perwerdehiya neyinî ye. Yanî perwerdehiya ku mirov arasteyî liv û bizavên heywanî dike û mirov dadixe pileya lewirtiyê…

Hemin ku mirov heyînê herî berz û pîroz e; nexwe divê ku li gorî vê pîrozweriya xwe were şerdekirin û perwerdekirin.

**Kaniya Helbestan**

**Bêrî Bihar**



# Bêrî

Ne giran e hilgirtina êş û kulên min,
Bi hêsanî dikarim li hember mij û moranan,
Ne zor e hemêzkirina borana berfan,
Tiştê pişta min xul dike, ne bi tenê mayîn û xerîbî ye.

Bêriya zarokên xwe yên kenşekir cejn dikim.
Niha her yek di kolaneke tarî de li du nanê xwe dibeze,
Aliyekî Şêxo daleqiya ye,
Bi sindoqa boyaxa şikalan ve,
Stûyê Şêrgo bi siniya şîraniyan ve xwar bûye,
Qîreqîra Ferhad e li ber deriyê xwaringehekê,
Mezlûm dikişe çekçekan di bin siya awirên pîremêrekî de,
Xwêdana laşên wan tevî hev dibe,
Dema bi hev re rûdinin ser pîvaz û nan.
Tiştê min dil dibe ne xizanî û hejarî ye,

Bêriya wan dilên piçûk û têde hêviyên mezin dikim.

Sibeha min bi rûgeşiya wan re dibû ronahî,
Dengê wanî zirav û neşmî bû ez ji rewşa tengijî Ya derûnî azad dikirim.
Ne min,
Lê wana ez perwerdeyî dijderketinan dikirim.
Ne nexweşî û dilêşî ye tengasiya min,

Bêriya zarokên xwe yên çavtîrêjroj dikim.
Di heman wêneyan de tiliyên van "V" li jor,
Bi kenekî dirangewher, bi çavên hûrik,
Hêjî heryek peykerekî giranbiha ye,
Di hêlîna çavên min de xwedîkirî,
Di qunciké herî germ yê dilê min de kedîkirî ne,
Bîranînên wan, bêhn û hilmên wan.
Di pênûsa min de digerin li dever,cîh û war,
Tiştê min xemgîn dike ne demsalên hêjar û ne payîz e,
Weke hêviyên ji salê zêde mayî, bin bênder.
Ne xem e hilweşîna pelên ji daran,
Bêriya zarokên xwe yên rûbihar dikim.

# Xaçepirs

Amadekar: Şehab Xalidî Mencel_senger@yahoo.com

Peyva veşartî 1 2 3 4

**Çeprast:**
1. Nik – Navê teyrekê ye – Navê darekê ye.
2. Navê duyemîn ê werzişkarekî Kurd e ku çend rojan berî niha di pêşbirkêya Boksê di Almaniyayê de bû yekemîn – Ferşên qahîm bi wê têne çêkirin.
3. Berevajî hekî peyva "Bozê" pêve bihê zêdekirin, navê çiyayekî ye di bakûra rojhilata Kurdistanê de – Di Farsî de tê wateya "Yux".
4. Di Erebî de tê wateya "Netewên" – Berevajî navê rojnameyekê ye ku di Îranê de tê weşandin.
5. Hûn – Navê rûbarekî ye ku dirije nava Behra Xezerê de – Got.
6. Rijand – Berevajî tê wateya, ka?
7. Berevajî navê meheke sala Zayînî ye – Navê jina ye.
8. Tiramî, kesê pûç û bêçin e – Êskek e li nêzî guhê mirov.
9. Navê xwarinekê ye – Navê êmîşekê ye – Pêxemberê Fileyan.
10. Di qiraxa ava çeman de şîn dibe – Fîlmeke Yîlmaz Guney e – Berevajî navê pezê mê ye.

**Serjêr:**
1. Roj – Çewiyayî – Peyva "bipêje" bibe bo demê rabihuriya nêzîk.
2. Şîn û tazî di Farsî de – Dengê vê aletê pir xweş e – Heke **R** bihê zêdekirin, tê wateya Xencer.
3. Navê jina ye – Ez dihêm.
4. wextekê derwazeban (golçî)ê taxima milî ya Îranê bû – Di serê mirov de ye.
5. Di Farsî de tê wateya "Bê êzayê" – Heke peyva Î bihê zêdekirin, navê desthilatdarekî Rûsiyê bû.
6. Agir – Di serdemê Mad de, wan jî di Kurdistanê de hukûmeta xwe hebûn – xwe.
7. Evîna Mem – Dimilkî.
8. Mirovên bi vî rengî jî zaf in – Bê xwê.
9. Berevajî navê heywanekê ye – Ew bi tîpên kirîlîk an jî sirilyek dinivîsin û dixwînin.
10. Di Îngilîzî de tê wateya "eva" (rastnivîsîna Kurmancî) – To – navê din ê "Demeşq"ê.

kultureke wêjeyî a dewlemend û resen di nava zaraveyên başûrî ên zimanê Kurdî de, em dikarin deriyekê ji bo dewran û qonaxeke pirbuhatir ji çand û toreya nivîsayî li başûra rojhilata Kurdistanê de vekin. Xwendevanên navdar weke **Perîşan Dîneweri** di vê sedsalê de dest dane pênûsê da ku fesl û qonaxeke nû ji toreya dewlemend a Kurdî li başûra rojhilata Kurdistanê de vekin.

Di çend salên rabihurî de cehd û çalakiyên nivîsandinê bi zaraveyên başûrî ên zimanê Kurdî li herêmên başûra Kurdistanê bi taybetî li parêzgehên Kirmaşan, Îlam û herêma Kelhur de rû li geşekirinê ye.

Çend xetek derbarê edebiyata hevçax a Kurdî li başûra rojhilata Kurdistanê:

Çand û kultura nivîsayî û çap û belavkirina berhemên edebî hevçax tevî guherînkariyên civaka îroyî a mirovahiyê sanahî li Başûra Rojhilata Kurdistanê de jî xwe di nava jiyana xelkê de cî kiriye û rojbiroj dewlemendtir dibe. Divêt em bibêjin ku hewcehiya bi têkiliya di navbera kulturan, parastin û geşandina nasnameya neteweyî û hinek hewcehî û daxwaziyên mirovî, hat û çûna nivîskarên hevçerx ên Kurd bo Başûra Rojhilata Kurdistanê û pêwendiyên xurt û berfireh û zêdetir ji hemûyan geşekirina seha neteweyî ji hegerên sereke yên tevgera nû û kulturî û rewşenbîrî di başûra rojhilata Kurdistanê de ne.

Nivîskar û helbestvanê Kurdistanê zêdetir berhemên xwe di çarçoveya helbest û çîvanokan de didin çapkirin. Nivîskarê Kurdziman bi piştrastbûn bi kultura dewlemend a wêjeya devokî ya xwe terzê nivîsandinê bi kar tîne bo tejîkirina valahî û nepêwendiyên ku jiyana modern li pêvajoya geşekirina wêjeyê di navbera nifşan de aniye holê, û pêvajo û formeke nû bi wêje û kultura dewlemend a devoka başûrî a zimanê Kurdî dibexşîne.

Her weke îşare pê hate kirin, gelek ji berhemên wêjeya nû di piroseyeke qalib û forimgirtî a nasnameyê de ne, bi merema peydakirina pêgeha pêkhatiya xwe di başûra rojhilata Kurdistanê de. Eva ku di vê rastayê de hêjayî pûte û giringî danê ye, pêşkevtin, guhartin û dewlemendbûna vê pirosesa wêjeyî, û pejirandin û mifahwergirtina qat û texên cuda yên civakê ye ji destkevtên vê ronesansê di wêjeya başûra rojhilata Kurdistanê de. Roj bi rojê koma nivîskar û xwendevanan zêde dike û di pêvajo û asta nîqaş û gengeşeyên wêjeyî de qelem bi destên Kurd şareza û jêhatîtir dibin. Herçiqas niha piraniya berheman di qalibê halbest û çîrokên Kurd de têne belevkirin.

Ji berhemên nû yên wêjeyî em dikarin ji helbestên **Şamî Kirmaşanî, Perto Kirmaşanî** û berhemê nivîskarê din weke: **Pervîz Binefşî, Cemîl Ahengnijad, Ebas Çemçemalî,** û **Feryad Şîrî** û **Nahîd Mihemedî** nav bibin. Her yek ji wan berheman li gorî xwe bas ji pêwendiyên navbera wêjeya resen û devokî û fikr û pêvajoya wêjeya îroyî a Kurd dikin. Di warê rexne û Polênbendiya helbesta nû a Kurdiya başûrê rojhilata Kurdistanê de, cudahiya berçav a vê helbestê eva ye ku ji hêz û şiyanên pêşçav û bêwêne yê zaraveya folkolorî mifah wergirtiye. Axaftin di diyalog û zaraveya folklorî, û bedew û nû de, kurt û gelek sade ye. Ev sadeyiye him di mana û him jî di xemilandina ziman de rol û cihekî girîng heye.

Gotinên nû yan folklorî manayekî hevterîb û wekhev çêdike û bi terzekê ji kûrahiya dil ve çavkanî digre û wateya li berçavgirtî a hebûnê tê de nexwastî û fontaziyayî ye.

Niha pêvajoyekî wêjeyî di holê de ye ku di rastaya pejirandin û wergirtina berçaviyên civakî de ye û pirek e ku pêwendiyên nivîskar û xwendevanan qahîm û kûr û fireh kiriye. Nabe em ji bîr bikin ku nasnameya wêjeyî tenê di çarçoveyeke meinewî de şekil nagire, belkî hewcehî bi form û rûçikeke fîzîkî jî heye bo hest û têgihîştineke hevpar. Bêguman di nebûna sîstemekî rastnivîsîna neteweyî, nivîsînên hevpar û ektîv, berhemên wêjeyî di nav bazneyeke ne rohn û sergêjiya nivîskî de bo xwendevanan dimîne û nivîskar tevî arîşe û girêpêçk û dîwarên cur bi cur bo pêwendî û gehandina dengê xwe bo xwendevanan berenger dibe.

## Bersiva Xaçepirsa Hejmara 45'an

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | H | Ê (2) | R | | Ş | E | K | R | O |
| 2 | M | | K | Û | Z | | N | A (4) | | K |
| 3 | A | G | | N | Î | L | | K | A | |
| 4 | L | Î | Z | | X | O | K | | B | E |
| 5 | Î | W | Î | G | | D | Û | N | | X |
| 6 | | Î | Z | E | D | | R | Û | S | |
| 7 | O | | O | V | Î | N | | H (1) | Ê | V |
| 8 | R | O | | Î | D | A | M (3) | | P | Î |
| 9 | A | S | O | | Î | L | A | N | | N |
| 10 | L | O | R | Î | | Î | M | Î | S | |

Peyva veşartî 1 2 3 4

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

# Li Heskîfê "Malên Neolîtîk" Hatin Dîtin

Di kolanên arkeolojîk ên li bajaroka Heskîfê de ku dê di bin ava bendavê de bimîne, malên dema Neolîtîk hatin dîtin. Wisa tê zanîn ku malbatên mezin ên dema pêşîn ên dêmanî di van malan de jiya ne.



Serokê Koma Kolana Heskîfê Prof. Dr. A. Selam Uluçam daxuyakirin ku di navbera pira kevn û ya nû de kolan kirine û rast li kavilên xanek du qatî hatine û li jora ciyê ku kolan kirine, li bakurê rojavayê Tekyaya Îmam Abdullah jî jiyangeheke nû dîtine. Serokê kolanê Prof. Dr. Uluçam da zanîn ku ji qada vê jiyangehê rast li cureya planeke balkêş hatine û weha berdewam kir: "Avahiyên mîna yên ku em ji dema Neolîtîk dinasin ku bi hev ve ne û derî û şibakên gelekan nînin û em wana mîna ban binav dikin û bi sîstema xêlî dikevine hundirê van malan, hatine dîtin. Herweha jiyangeh derketin holê ku li gor hezrên me, malbatên mezin di van jiyangehan de jiyane. Me kolanên van herêman teva kir û neha em ê wan bikine belge.

**Çavkanî: ANF NEWS AGENCY**
**Wergera ji tirkî: M. Felat Arda - Amîda Kurd**

# Îsmet Bozan Bû Şampiyonê Cîhanî Yê Boksê

Roja şemî 02.06.2006'an li bajarê "Goch"a Almanyayê, 2 xortên Kurd yên Êzîdî ji Kurdistana Turkiyê de, beşdarî lîstika Boks ya navneteweyî bûn. Ji gelek neteweyên cuda cuda lîstikvan di vê Galayê de hatin hemberî hev, lê belê lîstikvanên serkeftî Kurd bûn û her du xelatên sereke bi dest xwe ve anî.

Îsmet Bozan dîsan jî li hemberî hevrikê xwe yê Almanî de serkevt û bo cara duyemîn bû şamoiyonê cîhanê û di bin ala Kurdistanê de xelat wergirt.

Herweha di vê rojê de lîstikvanê bihêz



Kemal Tûtkan, şampiyonî û qehremaniya welatê Almaniyayê bi dest xist.

Hêjayî gotinê ye ku ev du lîstikvane qirare cejna serkevtina xwe di Kurdistana Başûr de bigirin û ji aliyê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ve bi fermî hatine gazî kirin.

Malbata Agirî bi vê serkevtina mezin gelek şad û keyfxweş e û pîrozbahiyê ji her du lîstikvan û hemû gelê Kurd dike û hêvîxwaz e mînakên han pir zêde bin.

## Berpirsiyarê RMMK'ê Dadgehê Re Hate Gazîkirin

Sala borî dadgeheke bajarê Sine, Mihemed Sidîq Kebûdvend, berpirsyarê RMMK û birêveberê Heftînameya




"Peyamê Merdom" bi guneha belavkirina mijarên direw û nerast bi merema têkdana raya giştî, afirandina dijberiyê li navbera tax û qatên civakê û anîne rojeva bas û qalên neteweyî mehkûm kir. Dadgehê, weşana **Peyam Merdom** ku Kebûdvend birêveberê vê bû, piştî derçûna 13 hejmaran daxist û herweha navbirî jî bi sal û nîvek zîndan û 5 sal bêparî ji karê rojnamevaniyê ceza da.

Dadgeha pêdeçûn bi ser cezayên navhatî, dîsan tekez li ser van cezayan bo Kebûdvend kir û divêt Kebûdvend xwe ji dadgehê re bide nasandin heya ku cezayên xwe bi dawî bike.

## Şewitandina 3 Hezar Gundan Ji Aliyê Turkiyê Ve

Rojnameya Îndîpêndint a Birîtaniyayê gotarek li ser rewşa Kurdên Turkiyê weşandiye ku têde aniyê Turkiyayê heya niha 3 hezar gundên Kurdan şewitandine, bêy wê ku kes pê bizane.

Costên Huglerî nivîskarê vê gotarê dide zanîn ku gelê Kurd, neteweyake mezin e ku heya niha di cîhanê de bê dewlet e, herwiha dibêje ku serbarê şewitandina 3 hezar gundan, bi hezaran kes jî bê mal û hal kirine.

Hogler dom dike û dêbêje ku Turkiye neçar e ku ji bo endam bûna di YE'ê de mafên kêmaniyên neteweyî û bitaybet Kurdan berçaw bigre.

**Jêder: kurdistantv.net**

- - - - - - - - - - - - - - - - - - - - - - - - - - - -

## Festîvaleke Mezin Ji bo Fîlma Kurdî Tê Lidarxistin

Yekemîn festîvala fîlma Kurdî ya Melborn **MKFF** qirar e di dawiya sala 2006'an de, li bajarê Melbrna Ustraliya yê de birêve biçe.

Komîteya birêveber ya vê festîvalê gaziya derhênerên Kurd û biyanî dike ku ger li ser Kurd û kurdistanê fîlm çêkirine yan dê çê bikin, ta ku bi fîlmên xwe başdarê vê festîvala Kurdî bibin.

Tanya Reuf yek ji endamên birêveber a vê festîvalê dibêje, "armanca **MKFF** geşepêdan û nasandina berhemên derhênerên nû û ciwan yên Kurd di seranserê cîhanê de ye ku bi hevkariya civaka Ustraliyayê û bi haydana wan ev festîvale tê lidarxistin."

Berhem divêt heya roja 30.09.2006'an bigihîjne vê nav û nîşanê:

**Box – Tree gulli VIC 3156**
**1227 Mountain Gate/fern**
**Email/:**
**kurdishcinema@kurdishcinema.org**